# ince Memed

# Memedê Zirav
# (Kurd Memed)

Nivîskar Yaşar Kemal

Wergêr Perwîz Cîhanî

* Ev wergera hê li çi cîhên dî nehatîye weşandinê

1.

Berekên çîyayên Toros heylo ji lêvarên Derîyaya Sipî ra dest pê dibin. Ev lêvarana ku herdem bi pêlên sipî û kefgirtî têne kutanê, bere bere ta qûçên bilindên çîyan pêş da diçin.

Li raserî Derîyaya Sipî hemêşe gultên ewrên 'kever berrîdene. Lêvara Derîyaya Sipî best û vekirîye. Axa wê ku xwalîya sore, wusan hulûye; tu dibêjî qey hatîye sûtin û şimşad kirinê. Xwalîya sor bînanî goşte. Ev 'erdana bi rêya demjimêran dûrî derîyayê jî bêhna tunde xoyê û bêhna derîyayê didin. Bêhna xoyê tund û tîje. Piştî zeviyên şovkirî yên besta xwalîya sor bişiyên Çukurovayê dest pê dibin. Çukurova bestek bê ser û bine, ku li bêhna tunde hişinatîya xizike kolên tûverreşkên rixtim, cegen, qamûş, dirrîreşk û

lawlawkên beyanî da, ku tu dibêjî qey bi hev va hatine hûnandinê, winda bûye. Besteke ku ji cengelên nenas jî nenastir û tarîtire.

Hindekî wêdatir hezekên berfire dest pê dibin. Hezekên ku li dirêjatîya rêya ku alîyekî da ber bi Anavarzayê û li layê dî da jî eger kesek tê ra derbas bibe, ber bi Osmanîyê berve diçin û digîjin Islahîyê. Ev hezekana li danê havînê da bilqe bilqa wane hildikelin.Vêca wusan pîs û genî dibin, ku mirov neşê nêzîkî wan bikeve. Bêhna genîye cegen, pûş û pelaş, saz û qamûş , çiq û şax û xwalîya rizî lê quloz dibe. Lê zivistanan aveka fûrrvedayîye zip û zelal û herrike. Havînan rûyê avê li ber kewz û qamûşan nayê xûyanê. Lê zivistanan av wekî çarşeveka armûşîn vedibe.

Piştî van hezekana dîsan zevîyên şovkirî dest pê dibin. Xwalî çivir û birqonek û zeliqoke. Û ji bo destvehatek libê çil lib,

libê pêncî lib ra hatîye amade kirinê. Xwaliyeka germ û nerme. Mirov ku li topkên vergirtî li darên mêrsînê û bêhna wane giran derbas dibe, ne ji gav da zang û zinar dest pê dibin. Wusan ne ji gav da dest pê dibin, ku mirov vedicinique. Di gel zangan darên çamê dest pê dibin. Şîreya darên çamê wekî libên şûşeyan dilopî ser axê dikin. Mirov ku ji yekimîn çamistanê derbas dibe, dîsan digîje bestên rast û vekirî. Lê axa van bestana xwalîya gewre. Xwaliyek boz û bêber. Li vira ra qûçên pirrberfe Toros wusan têne xûyanê, tu dibêjî qey eger tu destên xwe dirêj bikî, tu yê bikaribî wana himêz kî.

Dirrindeşt deştek ji van deştanaye. Li Dirrindeştê da pênc gund hene. Giştî nîştecîyên van her pênc gundana jî bêy zevî û zarin. Zevî hemû yên Evdî Begêne. Dirrindeşt digel tore û zaxûnên xwe yên taybetî cihaneke ji cihanê veqetiyayî. Giştî xelkên Dirrindeştê hema ji bilî gundên

xwe çi derên dî nas nakin. Kêm diqewime ku kesek ji wan ji Dirrindeştê derkeve derva. Li bara Dirrindeştê û gundên wê û çawanîya jîna gundîyên wê da jî haya çi kesî tuneye. Rêya qemçûrrgirên dewletê jî heylo du sê salan carekê lê dikeve. Ew jî çi carê rû li gundîyan nakevin û digel wan peywendê nagirin, belkû her tenê Evdî Begê dibînin û diçin.

Kanîaş mezintirîn gundê Dirrindeştêye. Evdî Beg li vî gundî da rûdinê. Gund ketîye rojhilata deştê da. Li binê zangekî da hatîye ava kirinê. Kevirên zangê kewhişinin. Hinapîrê bi rengên şîrikî, keskîn, zîvîn û rengên dî yên curre curre zang daye ber xwe. Sipîndareka pîr û bi gewde, ku li ber pîrbûna çiqilên wê yên xiloxaro li ser erdê da tewîyane, eva çendik û çend sale, ku bi mezinatî û giranîyek taybet li fêza gund li ser pîyan rawestaye. Tu ku ta sed gezîya spîndarê, ta pêncî gezîya spîndarê pêş da diçî, çi deng

û seda nayê. Her alî li bêdengîyek giran da cûm bûye. Bêdengî mirovan ditirsîne. Tu ku ta bîst û pênc gezîya wê da jî pêş da diçî, dîsan her wusane...Ta deh gezîya wê da jî dîsan heman bêdengîye. Lê gava ku mirov digîje kêleka darê û li rex zangê ra li ser darê da dizivirre, ne ji gav da her tişt tê guherrînê. Ne ji gav da xurrînek quloz dibe. Mirov li ber dengê wê xwe şaş dike. Pêş da deng wusan bilinde, ku guçkên mirovî `kerr dike, lê paşê bere bere deng veditexire.

Ew cîyê ku hurmîn jê tê, serekanîya ava Kanîaşêye. Serekanî nîne, lê gundî ji wê derê ra serekanî dibêjin. Ewan wusan dizanin.

Av li binê zinarekî ra kef li ser ketî difîşqîne derva û gerrînekekê çê dike. Eger letedarek bikeve nava wê gerrînekê, yê rojekê, du rojan, heylo heftîyekê li ser wê avê lev bigerre. Hindek li ser wê bîr û bawêrêne, ku ava zangê dikare heylo

xirreberan jî li ser xwe ragire û lev bigerrîne. Lê ya rastî ev dera serekanî nîne. Av ji cîyekî dûr ji çîyayê sipî serekanîyê digre û li nava çamistanê ra derbas dibe û digel xwe bêhna pûng û rihanmerzên beyanî tîne. Li vira jî li binê zangê ra derbas dibe û li alîyê zangê yê dî ra kef li ser ketî, dînok û hilkelok dihurmice û difîşqîne derva.

Li vira ta çiyayê sipî hind zang û raz û rewezên bilind hene, ku Toros hindî erdê malikê tê ber çavan. Çamên bilind û bi gewde li nava zinar û rewezan ra ber bi asimîn hilkişyane. Li nava van rewezana da bêderew çi giyanliberek najî. Tenê car caran, ew jî gelekî kêm bayê êvaran mirov dikare li ser qûça zinarekî bilind şivrekî bibîne, ku şaxên xwe yên mezin û çengalkî li ser pişta xwe da tewandîye, lingên xwe repitandîye û li cîhana bêbinî mêze dike.

2.

Kengirtûsî li hişktirîn û beyartirîn erdî da hişin dibe. Li axeka wekî penêri sipîçîl da hişin dibe. Li axekê da diberride, ku ne dar û ne jî çi curre gîhayên dî, heylo kerhêjîrok jî tê da hişin nabe. A ...li axeka weha da kengirtûsî serbest û mişe, bê bend û bar çiq vedide û tûrr davêje û li beratîya çolê da pêşve diçe.

Li axa baş da mirov ji derman ra jî rastî libek kengirtûsî nayê. Hegera wê jî yek ewe, ku axa baş beyar û bêkar namîne û herdem tê şovkirinê û ji çandinê ra amade dibe. Hegera dî jî ewe, ku tu dibêjî qey nîveka kengirtûsîyê digel axa berîner tuneye. Kengirtûsî li xwaliya ne wusan baş û ne jî wusan pîs da, û li erdên kode yên

navîncî da hişin dibe. Xelk kengirtûsîayn şov dikin û dewsa wan diçînin. Panavkên pêsîra çîyayên Toros ta nêzîkiya birrekan wehane. Bilindtirîn kengirtûsî hindî gezekî bejin vedidi. Vêca kerîyek çiqilên wê hene. Çiqilên wê tijîne li kulîlkên pêncperr û isteyrikî. Ev kulîlkana li nava istirînên tûj û birrek da nin. Bi her tûmek kengirtûsîyê va bi sedan ji van kulîlkên pêncperr û isteyrikî hene. Kengirtûsî li her kî derê hişin bibe, yek, du, sê, çar lib hişin nabe, belkû wusan ser hev, ber hev û rixtim hişin dibe, ku mar nikare li nav ra bişûlike. Tu derzîyê bavêjî li ber kengirtûsîyan nakeve erdê. Kengirtûsî li danê buharê da lawaze û rengê wê keskê vekirîye. Eger nermebayek bê, kengirtûsî wusan li ber ditewe, tu dibêjî qey bi erdê va dibe yek. Li nîveka havînê da, pêş da li çiqên wê da rehên şîn peyda dibin. paşê hêdî hêdî çiq û tûmên wê bitev şîn dibin. Ev şîna şînekî vekirîye...Lê şîn bere bere

xiziktir dibe. Îca ev şîna çi şînekî bedewe. Zevîyek, deştek bê ser û bin seranser şînî va dihingêve. Dev devî rojava, eger bayek rabe, deşt durust wekî derîyayek şîn pêl vedide û dihurmice. Danê êvarê derîya çawan sor dibin, deştên kengirtûsîyê jî wusan sor dibin. Berberî payîzê dirrik hişk dibin. Rengê wane hişin bere bere sipî va dihingêve.Vêca qirçeqirç li tûmên kengirtûsîyan quloz dibe. Hindek Şeytanokên sipî-çîl hindî bişkokan hene, îca li vê demê da bi sedan û hezaran ji van şeytanokana bi çiq û bistikên kengirtûsîyan va dizeliqin. Vêca tûmên kengirtûsîyan xal xalî sipî-çîl dibin.

Gundê Kanîaşê dirristane...Ne zevî lê heye, ne jî bax û baxçe. Erdê wê tev da kengirtûsîye.

Ew kurrkê ku li nava dirristanê ra dirrevî, bêhinçikyayî bûye. Mêjve bû, ku bê rawestan dirrevî. Nişkava rawesta. Li teşkên xwe nihêrrî. Ew cîhên ku dirrikan

dirrandibûn, xûn jê dikişiya. Nikarî li ser pîyan raweste. Ditirsîya, ku hema hindik maye pê ra bigîjin. Tirsetirs li pişt xwe ra mêze kir. Hindî çavan qeter dikir çi kes nedihate xûyanê. Şa bû. Ser milê rastê da zivirrî. Dîsan demekî dest bi revê kir. Paşê westîya. Westîyayî westîyayî li nav dirrikan da velezîya. Li alîyê çepê çavên wî li mûristanekê ket. Mêhrûyên gir û mezin, ku li ber devê mûristana xew li ser hev û ber hev ra diqilqilîn, dêhna wî li ser xwe da rakêşan. Demekî her tişt ji bîr kir û mat ma li mêhrûyan temaşe kir. Û gava ku nişkava hate bîrê, veciniqî. Ji cî rabû, li ser milê rastê da zivirrî. Demekê şûn da li dirristanê derket. Li rex dirristanê li ser çokan ket. Pê hesîya, ku serê wî li ber dirrikan ra tê xûyanê. Serê xwe xar kir û vêca kundkî rûnişt. Xûn gulok gulokî bi çîp û teşkên wî va rêz bibû. Dest pê kir xwalî li ser birînên xwe da reşand. Gava

ku xwalî kete ser birînan, şewat bi birînan ket.

Zinar kêmekî wêdatir bûn. Dîsan hindî guj û tawa wî hebû, ber bi zinaran dest bi revê kir. Gihîşte bal sipîndara ku li bin bilindtirîn zinarî da bejin vedabû. Li bin spîndarê da korek hindî çalekê hebû. Pelgên zere qîçik, bînanî zêrr, bi rehên sor va li binê darê da li ser hev da tîx tîxî bibûn û bejna darê ta nîviyê vepoşandibûn. Xişexişa pelgên hişk bû. Çû xwe avîte ser wan pelgana. Baldarek li ser kimê çiqek here bilinde sipîndarê ya rût, venîştibû. Gava xişên bihîst, firrî û çû. Kurrik westîya bû. Hecirî bû. Kete sêrî, ku şev li vê derê li ser van pelgana biêwire. Cîhê wî nerm bû. Dil nedikir ji cî rabe. Paşê xwe ji xwe ra got: “Na nabe, dirrinde yê li vira mirovî bixon.“

Ew çend pelgên hişk, ku bi çiqên darê va mabûn, li hewale ba bûn û jor da hatin û

ketin ser tîxa pelgan. Paşê pelgan bere bere yek û yek , du û du dest bi werîyanê kirin.

Xwe ji xwe ra xeber dida. Bilind bilind diaxift. Te digot qey kesek li bal wî heye ku pê ra qezî dike: “Ezê herrim, ezê herrim wî gundî peyda bikim. Çi kes nizane ez çûme wira. Ezê herrim û peyda bikim. Ez vaye diçim. Ezê herrim bibim şivan. Ezê cot bajom. Dayîka min jî bila li min bigerre. Bila hindî dilê wê dixwaze li min bigerre. Êdî rûteke jî nikare rûyê min bibîne. Nikare bibîne. Lê wakî ez wî gundî peyda nekim?! Ezê peyda nekim jî! Ezê birsîna bimirim. Ez vaye nêz da dimrim jî.“

Tava şîrogerme payîzî dar û ber û pelg dialast. Ax taze û ron û vekirî bû. Du, sê kulîlkên payîzî erd qelaştibûn û hemmanê dixwastin derkevin derva. Bêhnek tal ji çirîşê quloz dibû. Çirîşa terr diçilvilî. Li danê payîzê çîya bêhna çirîşê didin.

Demjimêrekê li wir ma, yan dûyan? Bixwe jî nizanî. Lê tav ber bi çîyan dişûlikî. Kurrik dest ji axiftinê kişand û hate ser hemdê xwe. Nişkêva kete sêrî ku li peyê wî ketine. Şêt bû. Li tavê nihêrrî. Hindik mabû tav biqulibîya. Ca niha yê ku da herre? Kî alî da herre? Bixwe jî nizanî. Şiverêyek bizinan li pêsîra zinaran da pêş da diçû. Kete wê şiverrêyê û dest bi helatinê kir. Nizanî eva dare, bere, zange çîye? Serê xwe xistibû ber xwe û dirrevî. Baş bêhna xwe vedabû. Radiwesta û li dû xwe ra dinihêrrî û dîsan dest bi helatinê dikir. Pîyên wî li hevdu dialîyan. Li gel helatinê çavên wî li ser darek rizî bi gumgumokekê ket. Nizanî çima Şa bû. Gava ku gumgumokê ew dît, revî xwe avîte bin darê. Carekê tiltilî û sist bû. Paşê rawesta. Serê wî gêj dibû. Çavên wî reşve tarî diçûn. Der û deşt wekî zivirrokê li dor serê wî dizivirrîn. Dest û pîyên wî jî dilerizîn. Piştî wê hindê ku li dû xwe ra

nihêrrî, dîsan dest bi revê kir. Nişkava refek kew li ber pîyên wî firrîn. Li ber firrîna refa kewan veciniqî. Hema li biçûktirîn xişênê jî vediciniqî. Vêca dilê wî dînok hildavêt. Dîsan bêhîvîyane li dû xwe ra nihêrrî. Li xûnê û xûyê da cûm bibû. Qudûmên çokên wî işkestin. Hecirî û vemirî xwe avête erdê. Ew cîhê ku lê rûniştibû panavek berdelan bû. Bêhna xûyek tirş jê dihat. Bêhna gulek bêhnxweş jî hate ber difina wî. Bi zorê karî çavên xwe veke. Serê xwe giran giran û tirse tirs rakir û li axarê xwe nihêrrî. Roj li dev devî ava bû. Sîber dirêj û dirêjtir bibûn. Li bintara xwe hemmanê çavên wî li reşê xanîyekî more ket. Ber şabûna dil hebû firr bida. Li kuleka xênî ra dûkel jî derdiket. Dûkel nermik nermik û giran giran ji kulekê qulozî hewa dibû. Dûkel dûkelek reş nibû. Rengê wê vekirî û kewhişinî va dihingêvî. Dengek weke dengê pîyan li dû xwe ra bihîst. Serê xwe bi taw zivirrand.

Li alîyê rastê cengel weke reşêşkeke reşe tarî pil pilî ji esmanan ber bi erdê jorda dihat. Dîsan dest bi axftinê kir. Lê vê carê bilind bilind diaxift. Hem li cengelê dirrevî, hem jî hindî hêza wî hebû, digot: “Ezê herrim bêjim wan ...Ezê bêjim wan ku...Ez hatime bibim şivanê we. Ezê bêjim ez dikarim cot jî bajom...Ez dikarim zevîyan jî bidirûm. Ezê bêjim navê min Mistike. Mistkê reş .Ezê bêjim ne dayîka min heye, ne jî bavê min...Ezê bêjim Evdî Begê min jî tuneye. Ezê bêjim, ezê herrim ber pezên we...Ezê cotê we bajom. Ezê bêjim ezê bibim kurrê we. Ezê hema bibim kurrê wan jî. Ez nabêjim navê min Memedê Zirave. Ezê bêjim Ji min ra dibêjin Mistkê reş. Bila dayîka min bigrî. Ez vaye dimirim. Bila Evdî Begê gawur jî li min bigerre. Ezê bibim kurrê wan.“

Paşê bi kûrre kûrr dest bi girînê kir. Rêlê reş û tarî dihurmicî. Hindî dikarî girîya. Hindî deng jê derdiket girîya. Xoşina wî ji

dengê girîna wî ra dihat. Gava ku li panavkê jor da hat, girîna wî xirt vebirrîya. Bi dermilkê xwe yê rastê çilma xwe paqiş kir. Dermilkê wî bû terr û şêlav.

Gava ku gihîşte hewşa xanîyê more, hewa lap tarî bibû. Li axara wî da reşên koloxtên dî jî li ber çavan diketin. Gavekî rawesta. Nav hişê xwe da çû. Ma nabe ku ev gunda heman ew gunda be?! Li ber dêrî mirovekî rûkoyî daliqiyayî li palanekî dixebitî. Gava ku rûko serê xwe li ber xwe derxist, çavên wî bi reşekî ket, ku li nîveka hewşî da çik rawestabû. Ewî reşî du, sê gav ber bi wî avêt û dîsan rawesta. Mêrik guh nedayê. Li dû karê xwe ra girt. Gava ku axar lap tarî bû, êdî çavên mêrik nedîtin, dest ji karê xwe kişand. Rabû ser xwe. Gava ku li ser milê xwe yê çepê da zivirrî, heman ew reşa li cîhê wî yê pêş da hema wusan çik rawestayî dît:

“Lolo! Lolo!“ Mêrik gazî kirê. “Lolo! çi karê te li vira heye?“

Reş: „Ez...Xalo... Ezê bibim şivanê te. Ez dikarim cot jî bajom. Ez dikarim her karî ji we ra bikim xalo.“

Mêrkê rûko milê wî ra girt û ew ber bi mal kaş kir:

„Ca vêga were hundur, emê paşê li bara her tiştî da biaxivin...“

Derva sirrek sar dihat. Memed li ber serma dilerizî. Wusan dilerizî, ku didanên wî li hev diketin.

Kalo gazî jinka ku li hundurr da bû, kir :

„Ardû bavêje bixêriyê, ev zarra vaye li ber serma dilerize.“

Jinkê zendegirtî pirsî: „Ew kê ye? “

Kalo bersiv da : „Mêvanekî Xudêye .“

Jinik li ber lêva xwe da kenîya û got : „Min qet mêvanên weha nedîtibûn ! „

Kalo got : „Te nedîtibû , îca niha bibîne ! ”

Jinkê berhimêzek êzing anî û yeko yeko êzing li nav bixêriyê da li ser hev da hilcinî. Bixêrî hêdî hêdî gurr bû.

Kurrik li kêleka bixêriyê aliyê çepê rûnişt û xwe kire girê û xwe bi dîwêr va zeliqand. Serekî mezin bi kurrik va hebû. Porrên wî yên reş ku rijiyabûn ser tefeşa wî, hind li ber tava deştê mabû, gevezî va dihingaft. Tefaşa wî biçûk bû. Tefeşek qerçimî. Çavên wî gir û qimer bûn. Leşê wî tavsotî bibû. Yanzde salî dihate xûyanê. Dirrikan şapkê wî ta çokan dirrandibû. Lew ra teşkên wî rût mabûn. Pêxas bû jî. Xûn gulok gulokî bi eşk û teşkên wî va hişk bibû. Herçend ku bixêrî baş gurr bibû jî, lê ew hê jî dilerizî.

Jinkê : „Tifalî, tu birsîyî? Bihêle ez ji te ra şorrbayê ro kim, vexo, bila tu germ bibî.“

Kurrik : „ A, ezê vexom .“

Jinkê dest pê kir, li beroşa zenge mezin, ku li raserî bixêrîyê bû, şorba sawarê berda dewrîyek zêc. Çavên kurrik zil man û li hulma ku li beroşê quloz dibû, nihêrrî.

Jinkê şorba anî û danî ber kurrik û kevçıyekî darîn jî da destê wî, û gotê : „zû zû vexo!“
Kurrik : „A, ezê zû zû vexom.“
Mêrik : „Hind jî bi lez venexo, devê te yê bişewite.“
Kurrk : „Na, na naşewite.“
Kurrik bişirî. Kalo jî bişirî. Jinkê çi wateyek neda bişirîna wan.
Kalo : „Şorrbayê dema wî saz kir, şêrê min êdî nalerize.“
Kurrik : „Erê, erê, ez êdî nalerizim.“
Jinik jî bişirî.
Bixêrî zor bi ser û ber û şimşad hatibû sîwax kirinê. Banê xênî jî bi herrîyê hatibû tepisandinê. Arrûkê xênî jî bi çirpî û alaşan hatibû rêkxistin. Arrûk li ber hîsa çendik û çend salan reş bibû, û ditteyisî. Xanî navbirr kiribûn. Alîyê dî pag bû. Hewayek wusan germ û nêmdar ji derê pagê ra dihate hundurr, ku bîzê mirovi tevî hev

dikir. Ewê bêhna rêxa dêwêr, kayê, û çirpîyên terr dida.

Ji alîyê pagê kurr, kiç û bûka kalo jî hatin. Kurrik bi hijmekarî xweş xweş li wan mêze kir.

Kalo gote kurrê xwe:„Tu çirra serçavanîyê nadî mêvanê me ?“

Kurrik bi mijdahî û zor li ser xwe serçavanî da mêvan :

„Ser çavan ra hatî bira, bi xêr û xweşî, çi heye, çi tuneye ?“

Kurrik jî bi heman giranî û sengîyê bersiv da: „Zor sipas. Her bijî! Xweşîya te.“

Kiçkê û bûkê jî serçavanî dane kurrikî.

Li wê navê da kotikê li nava bixêriyê da jî baş gurr bibû, û kozî girtibû.

Kurrik destên xwe li ber hev ra kiribû, û xwe kiribû girê. Kalo hat û li rex kurrik rûnişt. Gorriyên bixêrîyê sîberên sosret davêtin ser dîwaran. Kalo digel wê hindê ku sergermî temaşeya sîberên êgir bû,

hizrên li nav serê kurrik da jî dixwand. Piştî wê hindê ku kalo li temaşa sîberên gurrîyan ku li ber hej û livên alavan pêder cî diguhestin û neditebitîn, têr bû, bi bişirîn berê xwe li ser kurrikî da kir. Tefaşa kalo qoq û dirêj bû. Ridîna wî top û sipî-çîl bû. Enîya wî li ber tavê şewitîbû. Rengê zengê dida. Vêca gava ku alavên bixêrîyê davîte serçavên wî, enî, lam, û uskura wî bînanî zenga sor ditteyîsîn. Bînanî çawa ku tiştekî giring hatibe bîra kalo, kalo berê xwe li ser kurrikî da kir û got: „Hero mêvano, te negot ka navê te çîye. Pirsiyar bê xewşe, navê te bixêr ?“

Kurrik: „Ji mi ra dibêjin Memedê Zirav...“

Paşê bîna tiştê ku ji gotina xwe poşman bûbe, lêva xwe gest. Bi şerm û fedî serê xwe kire ber xwe da. Ji bîr kiribû, ku li rê da gotibû : „Ezê bêjim navê min Mistikê reşe. “ Paşê xwe ji xwe ra got : „De bila be, çi jê nayê. Îca Mistik kêye? Ma navê

min bixwe çi jê hatîye? Ezê çima navê xwe veşêrim ?! Vira ku çi kes min nas nake.“

Kalo gote bûka xwe :

„Sifrê raxe! Em şîva xwe bixon!“

Sifre raxistin. Binemalê bi giştî tevî Memed li dora sifrikê gerr girtin. Li ser xwerekê çi kesî qise nekir. Xwereka xwe li bêdengîyê da xwarin. Paşê bermilek ardûyê dî jî avêtin bixêriyê da. Kalo bi xwe jî rabû, çû kotikek anî û durust li nîveka bixêriyê da cî kir. Gurrîyan li her alî kotik dane ber xwe. Eva mezintirîn dilxoşiya kalo bû. Ev yeka nekira neditebitî. Gurrîyên êgir qurûşk qurûşkî dibûn û her alî li dor kotikê kalo dialîyan. Kalo bi vê hindê dilxweş dibû. Jinikê li guçkê kalo da hêdîka kire piste pist: “Silo ez nivînê kurrikî li ku danêm?“

Silo dîsa bi kena xwe ya caranî xweş xweş kenîya û got:“Li axurrê bergîrê pîr da...Tu yê li ku danêy? Em bi xwe li ku

radizên, ciyê wî jî li wur danê...Kê dizanê ka ev mêvanê minî xoşdevî ji kê derê ra bi hîviya Silo hatîye?“

Silo li ser Memed da zivirrî. Memed li ber germayê sist bibû û hemmanê dihênijî.

„Hero mêvano xewa te tê?“

Memed xwe berev kir û got:“na, xewa min nayê.“

Kalo zil ma li nav çavên kurrki mêze kir û got: “Hero Memedo te qet negot ka tu ji ku têy, û tu yê ku da herrî.“

Memed çavên xwe ku dûkel çûbûnê mizda û bersiva kalo da: „Ez li Kanîaşê têm û ezê herrim gundê hanê.“

Kalo bi xem û pirsîyar got : „Em Kanîaşê nas dikin, lê gelo ew gundê hanê kîjan gunde ?“

Memed bêy wê hindê ku xwe bezir bike, got : „Gundê Dursun wan.“

Kalo bi pêkutanî got : „Kîjan Dursun ?“

Memed : „Tu ku Evdî Begê nas dikî...“

Lê nikarî gotina xwe bidomanda. Çavên xwe kuta goşekê û mit ma.

Silo : „Êêêêê, îca ?“

Memed : „Tu ku axayê me nas dikî. Dursun heqdarê wîye. Cot dajo. Cotê Evdî axa dajo. Ez wî Dursunî dibêjim ha. „

Çavên wî biriqîn û kêmekî rawesta: „Ew Dursunê ku cûcikeka başokan girtibû, ha...Îca te nasî apo ?“

Silo :“Erê, erê min nasî...Êêêêê , îca , êdî ?“

Memed: „Erê da, ez niha diçim gundê Dursun wan. Dursun gote min ku li gundê wan da kes zarrûyan nakute. Zarran bizorê naşînin cot. Digot li zevîyên gundê wan da kengirtûsî tuneye. Ez dikim, ku herrim wura.“

Silo: „De başe navê wî gundî çi bû? Dursun qet ji te ra navê wî gundî negot?“

Memed mat ma. Nav hişê xwe da çû. Tilîya xwe ya beranî kire devê xwe û demeka xurt hizirî. Paşê nişkava go :

“Nea...Dursun navê wî gundî ji min ra negot.“

Silo : „Sosrete ha...“

Memed jî lê zivirrand :“Erê sosrete. Min û Dursun me tev cot dajot. Dursun li ser kevirekî rûdinişt û digot: Heyî te gundê me bidîta. Xwalî û berên wê tev da zêrre. Derîyaya wê heye. Çamistana wê jî heye. Digot mirov dikare li derîyayê siwar be û dilê mırov kî alî bixwaze herre. Dursun li wur revîbû.Gote min ku lı bara reva wî da ji çi kesî ra tıştekî nebêjim. Min heylo ji dayîka xwe ra jî negot.“

Paşê li ser Silo da xar bû û li guçkê wî da got :“Tu jî ji çi kesî ra nebêje! Erê apo ? „

Silo : „Netirse, netirse. Ez ji çi kesî ra nabêjim.“

Paşê bûk rabû çû û piştî qasekê bi çîwalekî dagirtî va ku dabû pişta xwe zivirrî. Bûkê çîwal danî wê nîvekê. Gava ku devê çiwêl vekir, qozên pembo rijiyane nav malê. Qoze hatibûn paqiş kirinê û çîl û

kever bûn. Her yek bînanî gulteyek ewrê kever bû. Nişkava hundurr xênî tijî bêhna tunde qozeyan bû.

Silo bi gulşayî got: „De kanê Memedê Zirav, pemboyan rakêş ber xwe, de ka tu şêrekî çawayî .“

Memed bermilek pembo rapêçî ber xwe kir û got :“Tu dibêjî ka çîye. Ma paqişkirina pembo jî kare ?“

Destên wî yên fêrbûyî wekî makînan dest bi karî kirin.

Kurrkê Silo got : „Îca Memedo tu yê niha çawa wî gundî peyda bikî ?“

Memed ku xûya bû çi xoşina wî ji vê pirsê ra nehatibû, keserek kûr rahêla û got: “Ezê lê bigerrim. Derîya li rex wî gundî heye. Ezê lê bigerrim. „

Kurrik: „Hero Memedo ji vira ta derîyayê rêya panzde rojane.“

Memed: „Ezê lê bigerrim. Ez bimirim jî ez êdî lingê xwe navêjim Kanîaşê. Ez êdî çi caran nazivirrim.“

Silo hilda û got: „Hero Memedo tiştek hatîye serê te. Te negot ka çi hatîye serê te, ku te weha serê xwe hildaye, tu li çil û çîyan ketîyî ?“

Destên Memed sist bûn: “Apê Silo raweste ezê hemûyê ji te ra şirove kim. Bavê min mirîye.Tenê dayîkek min heye. Êdî çi kesê min tuneye. Ez cotiyarê mala Evdî Begême.“

Gava ku gihîşte vira, çavên wî tijî bûn. Gewrîya wî şewitî. Bi zorê karî xwe ragire. Eger li ber xwe neda, kela girîyê dabû qirrka wî, yê kûrrîn lê da bigirîya. Memed dûmaya gotinê xwe ra girt :

„Eva du salin, ku ez cot dajom. Kengirtûsîyan ez dixwarim. Dirrkên wê...Dirrkên kengirtûsîyê bînanî san mirovî digrin. Ez li zeviyek wusan da cot dajom ha...Evdî Begê her roj ez ji mirinê ra dikutam. Duh sibêdê jî dîsan ez kutam. Seranserî leşê min hecirand. Ez jî ji wur revîm. Ezê herrim wî gundî. Evdî Beg

nikare min li wî gundî da peyda bike. Ezê li wî gundî da bibim cotkarê yekê. Yan jî ezê bibim şivanê yekê. Eger hez bikin ezê hema bibim kurrê wan.“

Gava ku got ezê hema bibim kurrê wan, zil ma li nav çavên Silo mêze kir.

Memed pingirrî bû. Wakî devê xwe vekira û peyvek dî jî bigota, yê bînanî dîzka danûyan bibijiqîya.

Lew ra Silo çîrroka Evdî Begê guhest :

„Ca vir da kanê Memedo, wakî dilê te naxwaze tu bizivirrî Kanîaşê, hema li bal me bimîne.“

Tefeşa Memed bişkivî. Pêlên şabûnê serdanpîyê wî lerizand.

Kurrkê Silo: “Memedê Zirav derîya gelekî dûre. Ew gunda jî hema wusan sanahî nayê peyda kirinê.“

Paqişkirina pembo kuta bû. Nava xênî tijî ispikên pembo bibû. Ispikên reşe biçûk, ku lezo bezo bi elepe li ser hev û ber hev ra dihatin û diçûn. Destek nivînê biçûk jî li

rexekî bixêrîyê danîn. Çavên Memed guhan kiribûn. Bi hijmekarî û xwazîk dîna xwe dida nivînan. Mêjve bû, ku Silo bi rewşa Memed hesîyabû. Nivîn bi tilîya xwe nîşanî Memed da û got: “Bikeve nav nivînê xwe?“

Memed bêy wê hindê ku tiştekî bêje, xwe kire girê û xirpişî nav nivînan. Çokên xwe himêz kir. Te digot qey leşê wî di conî da kutane. Seranserî leşê wî diêşîya.

Memed li dilê xwe da: „Ezê hema bibim kurrê wî. Erê ezê hema bibim kurrê wî. Dayîka min jî bila li min bigerre.Evdî Beg jî bila li min bigerre. Ca bila li min bigerrin. Hindî dilê wan dixwaze bila li min bigerrin. Ez êdî nazivirrim.“

Du demhejmêran berî tav lêdanê, durust li dema ku her roj diçû cot, ji xew hilpekîya. Li nav nivîna derket, çû derva. Hema wusan xewar xewar li derva şipêkî mîst. Piştî hînga hate ser hemdê xwe. Şevê dinê û Silo yê ridênsipî hanî bîra xwe. Li

dilê xwe da got: „Mala apê Silo! Ezê hema li vir bimînim. Ezê herrim wî gondê hanê çi? Ezê hema bibim kurrê apê Silo. Ez êdî venagerrim. „

Li ber sirra derva lê sar bû. Dîsan çû kete nav nivînan. Ser ji nû çokên xwe himêz kirin. Nivîn germ bû. Dizanî îro ta tavlêdanê dikare razê. Vêca dîsan jî xew ra çû.

Piştî sirra sibêdê tavê zeliqandê. Dadê şorrba li ser êgir hilanî. Hulmek bêhnxweş ji şorrba germ ku li rex bixêrîyê bû, quloz dibû. Kurrikê Silo mêjve bû, ku çûbû cot. Silo jî li ber kurtên rûniştibû, karê pînekirina kurtên, ku şevê dî nivîşkan mabû, ser ji nû dest pê kiribû.

Jinkê gazî Silo kir û got :

„Silo şorrbe sar bû, were şorrbaya xwe vexo.“

Silo pirsî : „Mêvan rabûye?“

Jinkê got: „Tifalî ...Dîyare duhûnê gelekî westîyaye. Şevê dî hema li ber bestan dipeyivî.“

Silo: „Deng lê neke! Belengazî, ji tefeşa vî ra dîyare, ku duhûnê hema pêder helatîye.“

Jinkê pirsî :“Gelo çira revîye ?“

Silo bersiv da : „Dîyare gelekî zorgivişk danê.“

Jinkê: “çi zarrikek xweşkoke jî. Bêdînan ji vê lepa zarrokê çi dixwazin?!“

Silo: „Hindî dilê wî dixwaze bila li mal da bimîne.“

Li vê navê da Memed bi bawûşk ji xew rabû. Piştî wê hindê ku bi her du destên xwe çavên xwe mizdan, çavên wî li bixêriyê ket. Ji şorrba ku li beroşa dervekirî da bû, hulmek sivik quloz dibû. Berê xwe li ser dêrî da zivirrand. Li qeşa dêrî ra tîşka tavê bînanî qeytanekê, ku bi kêrikê hatibe birrînê, dabû nava xênî. Nişkava li nav nivînan hilpekîya derva.

Gava ku Silo ew hejûliva ji Memed dît, gotê:

„Netirse berxê! Wakî dilê te dixwaze, dîsan jî tu dikarî razêy.“

Memed zivirrî û ew lûlengê zeng ku li rex bixêriyê bû, hilda û çû derva. Piştî hînga ku serçavê xwe bi aveka pirr şûşt, hat û li ser serê Silo ra rawesta. Dest pê kir li Silo û pînekirina palên temaşe kir.

Jinkê dîsan gazî kir: „De werin şorrba waye sar dibe. Werin şorrbaya xwe vexon!“

Silo ji ser kurtên rabû, kincê xwe dakuta û çavê xwe li Memed niqand û bi lêvken gotê: “Bibeze, em herrin şorrbaya xwe vexon!“

Şorrba, şorrbeşîra sawarê bû. Bêhna şîr û sawarê tevî hev bibûn û bêhneke xweş afiranibûn. Şorrba bi kevçikên darîn vexwarin. Xoşina Memed gelekî bi şorrbayê ra hat. Di dilê xwe da got: „Ezê hema bibim kurrê vana .“

Piştî taştê Silo karê pînekirina kurtên kuta kir. Vêca bi dest pûş û pelaş ditemisande hundurrê palên. Pûş li nav qetên tilîyên wî yên pîr û dirêj da vî alî wî alî dişûlikîn.

Tava payîzî bi gişt teyîsînê va cihan dagirtibû. Gava ku Silo pûş ditemisande hundurrê palên, tozek zere zirav jê quloz dibû. Toz li ber tirîşkên tavê diteyîsî û belayî axaran dibû.

Silo: „Evdî Begê gelekî tu diêşandî, nê?“

Memed ku li hêviya pirsiyarek weha da nibû, xwe berev kir û bersiv da: „Ez ji mirinê ra dikutam... Min hem pêxasî li nav kengirtûsîyan da cot dajot –Ew jî li ber sirr û seqema payîzê- hem jî ez ji mirinê ra dikutam. Carekê wusan ez kutam, ku ez mehekê li nav nivînê derneketim...Dayîka min digot wakî nivişta mela qîço neba, ezê bimirama. Ew li hemûyê dide, lê gelekî li min dide.“

Silo: „De başe, tu yê li bal me bimînî?“

Memed: „çi karê min li wî gundî tuneye. Hê ew jî rêya panzde rojan ji vira dûre. Ji min ra çi ku derîyaya wî heye. Wakî kengirtûsî li wur tunebe, li vira jî tuneye. Ezê hema li vira bimînim. Kes nikare li vêderê min bidozeve. Ma wusan nîne!? Li vira ta Kanîaşê duniyayek rêye. Kes nikare li vêderê min peyda bike. Ma na?"

Silo: „Lolo pêzevengê şêt! Aha Kanîaş vaye li pişt vî çîyayî daye. Ma rêka ku tu lê hatî, tu nizanî çeqase!?

Memed zendegirtî li cî da wehimî. Çav lê fire bûn. Xûyî da. Giştî hîvî û armancên wî bûne nexş û nemûşên li ser avê. Şurreşurra xûyê bû, ku ji ser û leşê wî dikişîya. Xwast ku tiştekî bêje, lê tûk li gewrîyê da mirçiqî. Tûka xwe qurtve kir û tiştek negot. Li hewale eluhan gerr lê didan. Gava ku çavên wî li eluhan ket, xwe ber bi Silo kişand û got: „De ya baş ewe ku ez herrim wî gundî û bibim kurrê wî

mêrikî...Eger Evdî Beg min bibîne, yê min bikuje.“

Silo bi tan û niç got: „De herre wî gundî, herre bibe kurrê wî mêrikî, herre...“

Memed: „Wakî ez bibama kurrê te, yê çawa baş ba, lê...“

Silo: „ Lê, çi?“

Memed: „ Wakî min peyda bike, ji Xudê jî natirse. Yê min pirtî pirtî bike.“

Silo serê xwe li ser kurtên rakir û got: „Çi tişt ji destê min tê Memedo?“

Silo ev peyva got û ji ser karê xwe rabû, çûrre çûrr li Memed nihêrrî. Tefaşa Memed wekî pelgek hişk qerçimî bû. Ronahîya çavên wî temirî bû. Te digot qay çavên wî ronahîya xwe ji dest dane. Gava ku Memed bera xwe dayê, Silo li wî mêze dike, xwe lap nêzîkî wî kir û bi destên wî ra girt û gotê:

„Lê yê çawa be!?“

Memed giştî hîvî û armancên xwe li çavên xwe da berev kir û çûrr ma li Silo nihêrrî.

Silo: „Netirse Memedo!“

Memed digel tirs û şabûnê taletal kenîya. Paşê Silo karê xwe kuta kir û rabû ser xwe û gote Memed:

„Memedo ez debê, ku ta wê mala pêşber herrim. Karê min li wêderê heye. Tu jî dilê te çi dixwaze bike. Eger hez dikî, herre nav gund, ji xwe ra bigerre. „

Memed ji wî qetîya û kete nava gund. Ev gunda gundekî bîst-bîst û pênc malî bû. Derûban hemû more bûn. Hindek kevir jî hema wusan nerêkandî û qestomesto bi navê dîwaran li ser hev da hilcinîbûn û xîmê xanîyan li ser wan da danîbûn. Bilindaya xanîyan bi zorê dibû gezekî.

Ser û binê gund gerrîya. Zarûyan li ser gastînê darçîtanê dileystin. Jin li pêş dergê xanîyan li ber tavê rûniştibûn û rîs dirîstin. Seyek jî dît. Segî dûlka xwe kiribû nav

lingên xwe û tirse tirs li rex dîwarekî ra derbas dibû. Her aliyê gund tijî tepik, kerme û peyîn bû. Ta êvarê malo malo li nav gund gerrîya. Çi kesî ji wî nepirsî ka ji ku hatîye û yê kuda herre. Lê wakî gundê wan ba, yekî nenas li ber çavan biketa, zarrû hemû lê berev dibûn. Lê mirovên wî gundî currekî dî bûn... ji vê yekê xoşina wî nehat.

Gava ku zivirrî malê, li himberî xwe Silo dît. Silo jê pirsî:

„Hero Memedo te çira qet serek li mal nedaye? Li nava gund qet çi hebû?“

Memed: “xweşîya te, tiştek tune bû.“

Piştî hînga ta çend rojên dî jî Memed hema wusan li nav gund gerrîya. Du sê heval ji xwe ra peyda kirin û digel wana darçîtanê dileyst. Li vê leyzê da çi kes nedibû cigirê wî. Lê Memed li ser xwe va nedihanî û li ber vî hunurê xwe li ber xwe ra nediçû. Eger li dewsa Memed zarrek dî li vê leyzê da şarezatîyek weha ji xwe

nîşan bida, bêy gotin yê gelekî li ber xwe ra biçûya. Lê Memed te digot qay vê leyzê gelekî zarrokane dihejmêre. Qet çi giringî nedida serdan û derdana wê. Li ber vê yekê jî hema xoşina zarrokan gelekî ji wî dihat û torrandina darçîtanê hind li zora wan nedihat.

Paşê barana payîzî ya Toros dest pê bû. Li xezelwera payîzê da pelg çawan ji daran diweşin, barana payîzî ya navçeyên Toros jî bi giratîya pelgên xezelwerê dikevine erdê.

Birûskê deng vedida û ewr dihurmîyan. Kevir ji çîyayê fêza malan dibijiqîn û ber bi deştê girrêl dibûn. Çîya bi dar û bar bû. Darên wî çîyayî mezin û bi gewde û rixtim bûn.

Memed rojekî hate bal Silo û gotê:“Apê silo hewika min nayê. Ezê ta kengê weha bêkar bimînim û nanê bêtune bixom?“

Silo: „Lezê meke Memed! Bibê nebê emê destên te jî bi tiştekî va bend bikin. „

Baran çend roan bend bû. Tav li ser zang û zinar, ax û pelg û darên nêmgirtî da birr birrî diteyisî. Hulmek sivik ji erdê radibû. Îca bêhna tepik û kerme û pêhîn digel wê hulmê belayî axaran dibû. Carcaran jî ewrên zîvîn tav dinixavtin.

Memedê Zirav li ber derê xênî li ser berekî rûniştibû û ew çarixên ku Apê Silo jê ra bi çermê xav dirûbû, pê dikir. Çarix nêmgirtî bûn. Pirçeke kew rûyê çarixê vepoşanibû. Ji vê pirçê ra dîyar bû, ku çarix ji çermê paroneyekî hatîye dirûnê.

Memed ji ber şabûna çarixan dil hebû firr bida. Silo hat û li raserî serê Memed rawesta û li çawanîya girêdana bençarixan ku Memed girê dida, temaşe kir. Destên Memed li grêdana bençarixan da fêre bûn. Ewî bençarix zû zû li hev derbas dikir û li pişt panîya xwe da girêdida.

Silo: „Hero Memedo tu li grêdana bençarixan da jî hostayî ha!..“

Memed serê xwe rakir û bi bişirîn got:“Apê Silo ez dikarim çarixan çê kim jî. Lê te ev çarixana baş dirûye.

Memedê Zirav rabû ser pîyan û carekê, du caran giranîya xwe avîte ser vî pîyî û pîyê dî û çarixên xwe teqî kirin. Paşê deh panizde gavan çû û hat. Dîsan digel pêgermokan li çarixên xwe nihêrrî û heyirî. Paşê hat û li kêleka Silo rawesta û got:“Apê Silo hema pîyên mi ra nin.“

Silo û Memed pêkve bi rê ketin. Memed hema wusan çavên xwe kutabûn ser çarixan. Carcaran jî radiwesta, ta kû çarixên xwe baştir bibîne. Carinan jî xar dibû, pirça ser rûyê çarixan bi dest tûmar dikir.

Silo bi şabûna Memed ra şa dibû:“Tu dibêjî qey xoşa te ji wan ra hat Memedo!“

Memed bersiv da:“Hema pîyên mi ra nin. Gelekî xoşina min bi çarixên weha ra tê.“

Silo:“Memedê Zirav wakî tu biçûyay wî gundî çi kesî ji te ra çarixek weha nedidirût.“

Memed:“ Ma li wî gundî da xelk solikan li pê nakin?“

Memed ev pirsiyara hindekî ji sadetî û hindekî jî ji qiliftî va kir. Lê Silo hilneda û got:“ Çi ra ? li wura xelk çarixan li pê nakin, belkû solikan li pê dikin.“

Memed got:“ Min zanî apo.“

Bi pegermok ji gund derketin. Nişkava dilê Memed vebû. Zevî û zar ta qontara wî çîyayê hanê, ku dûr va dihate xûyanê, berve çûbûn. Ev zevîyana hind kêr nedihatin. Kengirtûsî li van zevîyana da tunebû, lê hind jî zevîyên pesindanê nibûn. Zevîyên bi rend û kaş bûn.

Memed gavekî rawesta û got:“Apê Silo em hema weha ku da diçin?“

Silo got:“Em derketine gerrîyanê.“

Memed ser venekir. Dîsan li rê ketin. Li rê da herrî peşkîya çarixên Memedî yên

nû. Memedî di dilê xwe da dujîn dane wê herrîya ku peşkîyabû ser çarixên wî.

Gund dûr va mabû. Ji bilî çend zîvalên dûkelê, ku li hewa da ba dibûn, çi tişt ji gund nedihate xûyanê.

Silo got:“Memedo guçkên xwe bide min! Tu yê her roj bizinan bînî vira biçêrînî. Tu dikarî ta wan derên han jî herrî. Lê nebî nebî tu ji wî girikî, ji wî girkê gevez derbas bibî. Ew ber bi kewşenê gundê we diçe... Tu yê nişkava bibînî ku ewana hatin û tu girtin û birin.“

Memed: "Baş bû ku te got, ez pîyên xwe wî alî da navêjim.“

Silo got:“De başe, were em bizivirrin.“

Zivirrîn. Ewrên kever li asimîn da lev digerrîyan. Dewsa coxînan wekî guroverrkên keske xizik birr birrî li nav zevîyên bi xîştorr da belaw bibûn. Şeytanok jî tek û tek bi bistikên gîhayên bilind va zeliqî bûn.

Silo:“ Hero Memedo Evdî Begê rûteke gelekî tu diêşandî ne?“

Memed rawesta. Silo jî rawesta. Memed carek dî li ser çarixên xwe da mêze kir.

Silo:“Em li vira rûnên!“

Memed:“A, em li vira rûnên apo!“ Îca pşê şirove kir:

„Apo bihêle ez ji te ra bi hûrgilî bêjim. Bavê min ku mir, Evdî Begê dar û nedar, heyî û neyê me hemû ji me istand. Eger dayîka min tiştek bigota yê bikuşta. Ez jî digirtim û divirrvirrandim û li erdê didam. Carekî du rojan ez bi darekê va girêdam û tenê hîştim û çû. Ew jî li nîveka havînê da. Du rojan paşê dayîka min ez peyda kirim û ji darê vekirim. Wakî dayîka min ez peyda nekirama, gurgan ez xwaribûm.„

Silo keserek kûr kişand û got:“ Dey bêje, ew jî wusan.“

Û bi gotina xwe ra ji cî rabû û got:“Ji bîra te neçe ha, pîyên xwe nevêje pişt topkê gevez. Tu yê hînga pê bihesî, ku tu

dîtin û çûn gotin Evdî Begê. Îca hînga çi tişt ji dest me nayê. Yê werin û te bibin, herrin.“

Memed:“Na, na. Ez pîyên xwe wî alî da navêjim.“

Sibetirê Memed gelekî zû ji xew rabû. Li nav nivînan derket û baniz da derva. Hêsî bere bere gewir dibû. Çû li ber serê Silo rawesta. Silo li xew da dikire xurre xurr. Silo ji xew rakir. Silo çavên xwe vekirin û hêdîka pirsî: “Çîye? Tuyî Memedo! „

Memed bi şanazî bersiv da: „A, ezim.“

Paşê rawesta û got:“Apê Silo derenge. Ez dikim ku bizinan berdim.“

Silo zû ji nav nivînan derket û çavên xwe li jinkê gerrand. Jinik mêjve bû ku ji xew rabibû û li derva çêlek didot. Silo gazî jinka xwe kir:“Zû bike ratiba Memedê Zirav amade bike.“

Jinkê destên xwe yî şîr li nav sîtila mezine avê da şûşt û got:“Her çi mabe jî ezê êvarê bidoşim.“

Li avxwarinekê da ratiba Memed danî û ji wê şorrbeya ku li ser bixêriyê dikelîya, hindek şorrbe jî ji Memed ra rokir û danî ber. Memed li qasekê da şorrbe kişande qafê xwe û li çavgirtinekê da destexana ratiba xwe li pişta xwe girêda û bizin dane pêşiya xwe. Kumê xweyê qirêc û dongirtî ji serê xwe rakir û kevkîyî bizinan kir û bizin bi yeèe yeè ber bi lewergehê hajot.

Silo li dû ra gazî kirê:"Bi pê û palekî pîroz Memedo!"

Ta dema ku Memed û bizin bi Silo va dihatin xûyanê, Silo hema wusan li pişt xwe ra dizivirrî û li wan mêze dikir. Paşê xwe ji xwe ra got:"Heyî...zarotî."

Jinka wî hate bal û gotê:"Dîsan çîye? Dîsan çi bûye, tu wayî xwe ji xwe ra dibilînî û diderdînî?"

Silo keserek kişand û got:"Ca bera xwe bidê, kê dizane ka Evdîyê rûteke çi anîye serê vî zarrokî. Dilê mêriv jê ra pirtî pirtî dibe. Min bavê wî dinasî. Mirovekî

belengaz û li bera xwe da bû. Ca dîna xwe bide vî zarrokî lo! Gelo çi anîne sêrî, ku serê xwe hildaye û li çolê ketîye û penah birîye bo dirrndan. Ca lê binêrre lo!...“

Jinkê:“Tu jî hema her tiştî dikî kul dixî dilê xwe da.. were şorrba te sar bû ...were!...“

**3.**

Nêzîkîya rojava bû. Cotkar hemû ji nav zevîyan û li ser karên xwe zivirrîn. Lê Memed nezivirrî. Ro çû ava. Lê Memed nehat. Hewa tarî bû jî, lê Memed hê jî nezivirrîbû...